

**70 sal xebat di pêxema demokrasî û mafên netewî de**





*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

*Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî www.agirimedia.org Hejmar (259) 06-08-2015 Buha (500) Tûmen*


## Egera hiloşandina lihevhatina Viyenê heye



**Êd Roys serokê Komîteya Têkiliyên Derve ya Civata Nûnerên Amerîkayê, gelaleyek bona redkirina lihevhatina di navbera Îran û 6 welatên Rojavayî, pêşkêşî Civata Nûnerên Amerîkayê kir û, serokê piraniya Senayê jî ragehand ku sinator wê biryarnameya redkirina lihevhatina Viyenê bipejirînin.**

Êd Roysê Komarîxwaz roja Sêşemî 4'ê Tebaxa 2015'an (13.05.1394) gelaleya xwe pêşkêş kir û biryar e ku di despêka heyva Îlonê de li Civata Nûnera bikeve ber dengdanê, û hekî dengên hewce bîne û bê pejirandin, wî çaxî lihevhatina etomî ya Viyenê tê hiloşandin.
Li gorî yasaya ku di heyav Gulanê de hate pejirandin, kongireya Amerîkayê tenê heya 17'ê Îlonê (26.06.1394) moleta vê yekê heye ku rêkevtinê red an jî bipejirîne.

Hekî bêt û daxwazên Komarîxwazan bên dabînkirin, tenê biryarnameya redkirina lihevkirina etomî tevî Îranê, di civata nûneran û Senayêde di kewe ber dengdanê û, pejirandina vê lihevkirinê tenanet weke bijardeyek jî êdî der nakewe holê.

Mîç Mek Kanal ê rêberê piraniya komarîxwazên Senayê jî ragehand ku Sena jî wê biryarnameya redkirina lihevhatinê bixe ber dengdanê.
Bi vî halî jî piştevaniya Demokratan ji lihevhatina Viyenê, egera pûçkirina mafê Vîto ya serkomar jî li Komarîxwazan disitîne.

Jiber ku wan bona gehîştin bi armancên xwe pêtivî bi du liser sê ya dengê endamên kongirêsê heye.

Civata Nûnerên Amerîkayê niha jî xwediyê 264 nûnerên Komarîxwaz û 188 nûnerên Demokrat e, û rêjeya hewce bona pejirandin yan redkirina rêkevtina Viyenê du li ser sê wate 290 deng e.

## Birînên karesata Şingalê hêj bikul in

Yekemîna salvegera karesata 3'ê Tebax a 2014'an, wate qirkirina Kurdên Êzidî bi destên hovîtiyê derbaz bû. Di vê cînayeta kêmwêne de ku ew qasê hovîtiya Dewleta Îslamî "DAÎŞ"ê nîşan dide, bi hezaran Kurdên Êzidî hatin kuştin, bi sedan û bigire bihezara jin û keç di nava bazarên hevesbaziya çekdarên kurahiya nezaniyê de hatin herackirin û firotin û yan jî bi nirxa kole û xodam bi diyarî hatin şandin.

Bi navê Desteya Weşana Rojnameya Agirî ve, carek din em vê cînayetê pirotesto dikin û hêvî û daxwaza rizgarkirina Şingalê ji destên terorîstên "DAÎŞ"ê û herweha vegeriyana Kurdên Êzidî bo ser zêda bab û kalên xew dikin.







»»» R: 4

**Zêdebûna aloziyên siyasî di Turkiyê de piştî...** »»» R: 5



**Tirajidiya Havîna 67'ê û lihevkirina Viyenê** »»» R: 7



**"Ez tenê vê yekê dibêjim ku roja azadiyê wê..."** »»» R:8


Menîce Melamîne

**Pirsa jîngeh û şewitandina daristanên Kurdistanê** »»» R: 10







## Sergotar

### Hizba Demokrat û 70 sal xebat

**Arêf Vêlzî**

Avabûna Hizba Demukrat ya Kurdistana Îranê, yek ji deskewtên herî binirx a netewa bindest ya Kurd e di dîroka hevçerx de.

Hizba Demokrat di çaxekî de hate avakirin ku netenê civaka Kurdistanê, belkî seranserê Îranê û tenanet gelên Rojhilata Navîn jî, di kurahiya nezaniyê de derbaz dibûn.

Lê Hizba Demokrat bi avabûna xwe, deriyek liser civaka parvemayî ya wî çaxî ya gelê Kurd vekir û herweha rêbazek jî bona gehiştin bi rizgariya netewî diyarî kir ku, niha jî piştî 70 salan gelê Kurd li Kurdistana Rojhilat, xewnên xwe yên siyasî û netewî her di felsefeya Hizba Demokrat de dibîne.

Di rastî de Hizba Demokrat liser bingeha pêkanîn û çêkirina hizr û şunasa netewî û, di encam de rizgariya netewî li Kurdistana Rojhilat pêkhat û, di kar û rêbaza xwe de jî bi qasekê serkewtî bû ku her piştî salekî, bûye sedema jidayîk bûna yekemîn komara demokratî di Kurdistanê de.

Rastî û dirustî û îroyîbûna bername û peyrewên Hizba Demokrat û herweha pêşengiya her sê rêberên şehîd Qazî û Qasimlo û Şerefkendî û liserweyî hemûyan Dr.Qasimlo, serbarê vê ku bûne sedema afirandin û anîna karê rêkxistinî û, perepêdana hizra netewî û bi giştî geşandina civakê di warên siyasî û çandî û civakî û aborî de, bûne sedema vê ku pirsa netewa Kurd serbarê wan hemû tepeserkirin û qirkirinên ku derheq hatibûn kirin, bibe pirsek cîhanî û di nawend û rêkxistinên cîhanî de bên ber bas û, tenanet di rêkxistinn weke Întêrnasyonal Sosyalîst "SI" de jî nûnerê Kurdan wate nûnerê Hizba Demokrat a Kurdistana Îranê Hebe û, her eva jî rê ji boyê vê yekê xweş kir ku hêdî hêdî partên din ên Kurdistanî bikarin bi piştevaniya Şehîd Qasimlo, di siyasetkirinê de sînorên Kurdistn û herçar welatên dagîrker bibirrin û derbazî welatên Awrûpayî û Amerîkayî bibirin û dengê belengazî û azadîxwaziya gelê xwe bigehînin cîhanê.

## Mistefa Hicrî: Pêşbîniyên me derheq bi keysa etomî û helwêsta dawî ya Komara Îslamî rast derketin

Birêz Mistefa Hicrî sekreterê giştî yê PDKÎ di gotûbêjeke bi ajansa "Anadolo"re, serbarê vê ku basa rêkewtina di navbera rejîma Îranê û welatên Rojavayî de dike, îşare bi teslîmbûna rejîma Îranê jî li hember vê rêketinê dike.

Li gorî rapora malpera Kurdistan Mediayê, Misetfa Hicrî sekreterê giştî yê Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê li vê got û bêjê de qala serdana dîplomasî ya xwe ji bo welatên Ewropayî û Amerîka kiriye û daye zanîn ku wan welatan piştevaniya xwe ji doza Kurd dubare kirine.

Sekreterê giştî derheq lihevhatina etomî ya di navbera Komara Îslamî û welatên 5+1 de dibêje: "Min berê jî îşare bi vê yekê kiribû ku Komara Îslamî ya Îranê ji ber wê ku di warê aborî de rastî girft û arîşeyan hatiye, neçar e ku hemû mercên rojava bipejirîne û, me dît ku xala lawaz ya rejîmê jî derket".

Hicrî herweha dibêje: "Rejîma Îranê bona vê ku bikare dorpêçên li ser xwe bide rakirin, neçar bi van danûstandinan bû ku zêdetir ji salekê domiyan û çend caran jî hatin dirêj kirin û, Îranê jî hewil dan ku deskevtên zêdetir bidest bixe, lê di dawiyê de mercên Rojava pejirandin û teslîm bû".

Pêkanîna pirsgirêk û giriftan ji bo xelkê, bêkarî, bêbernameyî û sekinîna hezaran pirojeyên xizmetguzarî li Îranê, ew xal bûn ku Mistefa Hicrî bas jê dike û li vê baweriyê de ye ku, tev diyardeyên han li encama pozbilindî û zêdegaviyên Îranê de pêk hatine.

Hicrî li doma axaftinên xwe bi ajansa "Anadolo" re, bas ji du fakterên sereke dike ku Îran neçarî teslîmbûnê kiriye. Bi baweriya wî, Îranê du dujminên wehmî û ferzî ji xwe re ava kirine ku ya yekem, civaka suneyan e ku derdora Îranê girtine û, ya din jî, Rojava bi giştî û bi taybet Amerîka ye.

Lewre ye ku rejîma Îranê dixwest bi çêkirina çeka navikî xwe biparêze, lê pilana wê şaş bû û dorpêçên dijwar bi ser de hatin sepandin û bi dûrketin ji siyaseta navdewletî û îzolebûna ji civaka cîhanî, xisar û zirarên mezin ji xelkê Îranê re kire diyarî û, di dawiyê de jî Îran teslîm bû û bi neçarî rêketina han wajo kir.

Sekreterê giştî li ser vê baweriyê ye ku, ji ber vê ku Komara Îslamî bawerî bi pirsa diyalog û got û bêjê nine û, xwe bi jêhatiyê çeka navikî dizane, lewre soz û peymanên wê cihê hutbar û baweriyê nine û li derbasbûyî de jî, sozên xwe binpê kirine.



Hicrî li vê gotûbêjê de bas ji serdana xwe bo Amerîkayê dike û dibêje: "Berpirsiyarên Amerîka jê re ragihandine ku li gorî rewşa her welatekê, emê alîkariya Kurdên wî welatî bikin û, di vê derheqê de jî soza alîkariyê dane.

Herweha daye zanîn ku li bernameya PDKÎ'ê de ye ku, bi welatên Erebî re têkiliyan çê ke û derheq têkiliyên bi Turkiyê re jî daye zanîn ku, ew têkiliyên dîplomatîk ku li gorî çavnihêriya me ne, hêj pêk nehatine.

## Daxuyaniya Komîteya Nawendî ya PDKÎ'ê derheq bombebarankirina binkeyên PKK'ê

**Komîteya nawendî ya Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê, daxuyaniyek derheq bombebarankirina meqer û bargehên PKK'ê û herweha deverên sînorî ên Başûrê Kurdistanê ji aliyê artêşa Turkiyê ve, belav kir.**

**eva deqê daxuyaniyê ye:**

Daxuyaniya komîteya nawendî ya Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê derheq bombebarankirinên vê dawiyê ên deverên Kurdistanê

Di demekê de ku rêberiya PDKÎ'ê li civînek asayî ya xwe de bû, hat haydarkirin ku demjimêr 11'ê piştînîvro ya roja înê, 24'ê Tîrmeha 2015'an (02.05.1394), balafirên şerker ên artêşa Turkiyê, êrîşî ser meqer û baregehên gerîlayên PKK'ê li her du aliyên sînorî ên Amêdî û Qendîlê kirine û zirarên canî û malî ên zaf bidû xwe re anîn û eva jî bûye sedema vê yekê ku agirbesta di navbera hikûmeta Turkiyê û PKK'ê ku, bi armanca pêşdebirina pêvajoya aştiyê ji du salan berî niha ve di navbera her du aliyan de dest pêkiribû, tevî metirsiya şikandinê berbirû bibe.

Xûya ye ku her cure êrîş û rikêfek, cuda ji vê yekê ku kîjan alî destpêşxer bûye, wê derbek giran ji vê pêvajoya aştiyê bixe ku, civatên xelkê Turkiyê û keç û xortên netewa Kurd di wî welatî de bi hêwiya çareseriya pirsgirêkan li bendê bûn. Bê guman cîgirtina şer û pevçûnan li cihê pêvajoya aştiyê, ji bilî goriyên zêdetir û wêranî û kavilkariyên zêdetir, di berjewendiya giştî ya tu aliyekê de nine.

Komîteya nawendî ya PDKÎ'ê hêwî dike ku her du alî bi berpirsatiyek zêdetir û liberçavgirtina berjewendiyên bilind ên giştî û di pêxem destpêkirina ducarî ya pêvajoya aşîtiyê, xwe ji her cure bizaveka li dijî diyalog û pêvajoya aşîtiyê biparêzin û hemû êrîşan bidin sekinandin, herweha erkê her aliyekê jî ye ku, ji bo sekinandina liv û tevgerên li dijî aşîtiyê, alîkar û piştewan be.




Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê
Komîteya nawendî
26.07.2015
04.05.1394

# Deftera Siyasî ya Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê derheq bi dawîhatina 10'emîn pilînoma Komîteya Nawendî, daxuyaniyek belav kir.

**Komîteya nawendî ya PDKÎ'ê 10'emîn pilînoma xwe demjimêr 9'ê sibêdeya roja Şemî, 25'ê Tîrmeha 2015'an (03.05.1394) bi beşdariya piraniya endamên eslî, Cîgirên komîteya nawendî û nûnerên endamên rêberiyê li derweyî welat lidar xist.**

Pilînom bi deqeyek bêdengî ji boy rêzgirtin ji canê paqij ê şehîdan, bi taybetî dawîn şehîdê Hizbê "Qadir Kerîmî" dest bi karê xwe kir.

Piştre destûra karê Pilînomê ku pêştir endamên rêberiyê jê hatibûn haydarkirin, piştî pejrandinê, ji aliyê birêz "Mistefa Hicrî" sekreterê giştî yê PDKÎ'ê ve basek giştî û siyasî û herweha rapora kar û sefera xwe bo derweyî welat hat pêşkêş kirin. Hicrî li vê raporê de îşare bi van bas û mijaran kiribû ku li hevdîtinên bi rayedarên beşek ji wan welatên rojavayî "bi taybetî Amerîka û Almaniya"re hebibû û, endamên 10'mîn Pilînomê ji hizr û ramanên wan li hemberî pirsên têkildar bi Rojhilata Navîn, haydar kir.

di parek din ya rapora sekreterê giştî de, îşaret bi lihevhatina di navbera welatên 5+1û rejîma Îslamî ya Îranê hatibû kirin ku, berê jî Hizba Demokrat pêşbîniya vê lihevhatinê kiribû û anîbû ziman ku, rejîma Îranê piştî rêkewtina han, bi azadkirina pereyên cemidandî ên xwe û, herweha egera sivikkirina dorpêçan û jordebirina rêjeya derfirotina petrola xwe, dê dahata xwe jî jorde bibe, lê beşa herî kêm ya wê dahatê dê ji bo xelkê Îran û beşa herî zêde jî ji bo dezgehên tepeserkar ên wekî Sipaha Pastaran, Îtilaat û Besîcê bê terxankirin û li derweyî welat de jî dê ji bo hevalbendên xwe ên weke Hizbulaha Lubnanê, Hosî'yên Yemen'ê, Hikûmeta Beşar Esed û deste û gurûpên terorîstî ên din bê mezaxtin. Eşkere ye ku xurtkirin û bihêzkirina van taqim û gurûpên terorîstî û fitneçî, dê li piraktîk de jî pirsgirêk û tevdankariyên zêdetir ji bo welatên deverê li pey xwe bîne. Beşdarên Pilînomê jî piştî bihîstina raporên sekreterê giştî, raman û pirsiyarên xwe anîn ziman û sefera sekreter jî berhemdar û serkevtî zanîn.

Di beşek din ji karê Pilînomê de, Hesen Şerefî, Cîgirê sekreterê giştî yê partiyê jî nirxandinek siyasî li ser doza Kurd, li hemû parçeyên Kurdistanê bi şert û merc û taybetmendiyên xwe ve pêşkêşî beşdarên pilînomê kir. Endamên rêberiya hizbê jî bi heman awayî têdîtin û ramanên xwe li dor rewşa Kurdan li her yek ji parçeyan de anîn ziman û analîzên cîgirê sekreterê giştî ku xalên bihêz, erênî û nerênî ên pirsa Kurd li her yek ji parçeyan ji xwe girtibû, bi rastbînî û dirust nirxandin.

Beşek din ya karê Pilînomê jî bo raporek din hatibû terxankirin ku "Komîsyona Siyasî- Nîzamî" a hizbê li ser encamên liv û tevgera vê dawiyê ya hêza pêşmerge ya hizbê li hundur û derweyî welat, başûrê Kurdistanê û cîgirbûna wan li deverên sînorî de, pêşkêş kir.

Beşdarên pilînomê jî îşaret bi aliyên erênî û encamên buhadar ên vê bizava dawîn kirin û sopas û pêzanînên xwe ji kadr û pêşmerge û endamên hizbê li navxwe, derweyî welat û Başûra Kurdistanê û endamên Yekîtiyên Lawan, Jinan û Xwendekaran û dostên Hizba Demokrat a Kurdistana Îranê anîn ziman ku li pêvajoya vê hereketa dawîn de, her yek ji wan bi awayekê fedakarî kirin û li gor erkê diyarîkirî ên xwe, bi dilsojî ve hevkar û piştevaniya hêza pêşmerge ya hizbê kirin. Herweha îşaret bi hin kêmasiyên li vê derheqê de jî kirin û rêberiya hizbê raspartin ku wan destkewtan biparêzin û bi berçavgirtina şert û mercên dever û Îranê û li gorî şiyanên xwe, li pêxem pêşdebirin û bibandortirkirina vê tevgerê pêngavan bavêje û, ji boy vê armancê jî, bername û pilanek jêhatî hebin daku alîkarê geşekirin û pêşdeçûna zêdetir û xurtkirina tevgera Kurdistana Rojhilatê be.



Herweha Pilînomê sipas û pêzanînên xwe ji boy helwesta hemû wan partî, sazî, NGO, kesatî û aliyan jî nîşan da ku, li pêvajoya vê hereketê de bi awayên curbicur piştevaniya Partiya Demokrat kirin û, hereketa han bi jêhatî, berheq û pêngavek bibandor zanîbûn.

Dawîn beşa karê pilînoma 10'an ya komîteya nawendî ya PDKÎ'ê jî, basek giştî bû li ser rewşa karûbarên hizbê li çend warên din de, ku beşdarên Pilînomê di vê derheqê de, piştî nîqaş û dahûrandinan, biryarên hewce li dor her mijarekê dan.

10'mîn pilînoma komîteya nawendî piştî 3 roj karê berdewam, piştînîvroya roja Duşemî, 27'ê Tîrmeha 2015'an (05.05.1394) dawî bi karên xwe anî.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**

27.07.2015
05.05.1394

# Daxuyaniya PDKÎ derheq bi lihevhatina navikî ya Îran û welatên 5+1

**Deftera Siyasî ya Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê, derheq lihevhatina navikî ya rejîma Îslamî ya Îranê û welatên 5+1, daxuyaniyek belav kir.**

**eva deqê daxuyaniyê ye:**

Hemwelatiyên birêz!
Civatên xelkê Kurdistanê!

Li pêvajoya du dehsalî ya hewl û tekoşîna Rejîma Komara Îslamî ya Îranê bo xebitîna lidor pirograma navikî bi armanca çêkirina çeka navikî ku, bi awayekî nepenî û dûr ji çavên ajansa navnetewî ya Vejena Navikî dimeşand, piştî eşkerebûna tekoşîna rejîmê, nîgeraniyên civaka cîhanî û bi taybetî welatên rojavayî di vê derheqê de ber bi zêdebûn çûn.

Lewre civaka cîhanî bi armanca pêşîgirtin ji destpêregihîştina Komara Îslamî bi çeka navikî, dorpêç û hisarên berfireh yên bi tak û bi kom ji riya dezgeh û saziyên navnetewî, bi ser Komara Îslamî de sepandin.

Her çiqas ku van dorpêçan demûdest tesîr û bandora xwe xistin ser aboriya Îranê, lê rejîma Îslamî ya Îranê her cure biryarek di vê derheqê de, bi kaxezên dirryayî "Kaxez Pare" dan zanîn û encamên dorpêçan jî li berjewendiya aborî ya Îranê û, gihîştin bi qonaxa "xodkefayî" ragdigehand.

Pêvajoya han 12 salan dom kir û di dawiyê de encama dorpêçan li ser aboriya Îranê û rewşa rejîmê gellek bi bandor û bi tesîr bû û, rejîm neçar kir ku bi micidî here ser mîzê gotûbêjan û, ji bo rizgarkirina xwe ji asewarên hiloşîner ên van dorpêçan, pêngavan bawêje.

Pêvajoya rûniştin û gotûbêjên micid li ser pirsa navikî ya Îranê, nizîk bi 22 heyvan dom kir û di encam de roja Sêşemî, 14'ê Tîrmeha 2015'an

**Dom R:4**





**Doma R:3**

(23.04.1394) her du aliyên danûstankar lihev hatin û, kakil û naveroka lihevhatinê wajo kirin û, li rûyekî de nîşan dan ku hemû aliyekî vê danûstandinê, razî ne.

Rêkewtinek ku ne hemû armancên rojavayiyan bo hetaheta misoger dike û, ne jî pozbilindî û zêdexwaziyên Komara Îslamî bilez û demûdest bi cî tîne. Kakila rêkewtinnameya navbera Komara Îslamî û welatên 5+1, ji bo rojavayiyan li egera pêgirnebûna rejîma Îranê bi hemû bendên vê rêketinê, vê armancê misoger dike ku ger bo hertim jî nebe, lê heya çend salan metirsiya destpêregihîştina Komara Îslamî bi çeka navikî kêmtir dike.

Ji bo Komara Îslamî ya Îranê jî, hilgirê vê peyamê ye ku dorpêç jî, ne li gor dilê Komara Îslamî û daxwaza wê tên hilgirtin, belkî li qonaxek diyarîkirî ya zemanî de, wê li ser Îranê bên hilgirtin yan sivik kirin.

Li şert û mercên piştî pejrandina vê rêketinnameyê û sivikkirin û hilgirtina dorpêçan de, Komara Îslamî (xelkê Îranê na) dê bêhn û nefesek taze vede û bi azadkirina sermayeya cemidandî û bilûkekirî ya xwe û, firotina petrola pitir û dahata zêdetir, destê wê li warê aborî de vekirîtir dibe, li vê derheqê de hin kes û alî wusa dinirxînin ku pêvajoya han dê bandorek baş li ser rewşa jiyan û bijîva xelkê Îranê bike, li halekê de bi nasînekê ku ji cewhera Komara Îslamî, siyaset û kiryarên wê heye, tê pêşbînîkirin ku beşa herî kêm ya vê aboriya çavnihêrkirî wê bikewe destê xelkê û bi qazanca jiyan û guzerana wan be. Di hember de, beşa herî zaf ya wê li hundurê welat de ji boy dezgehên tepeserkar, ewlehî, îtilaat û dezgehên din yên ser bi rejîmê û, bi taybetî Sipaha Pasdaran ya Îranê dê bihê terxan kirin, daku rejîm li ser domandina tepeserkirina azadîxwazan û, tenanet cudabîrên hundurê rejîmê de pêgir be.

Derbasbûyî nîşan daye ku li haletên wusa de, tepeserî û givaş bo ser xelkê berfirehtir û hovanetir dibin û li derwey welat de jî rê bi rejîma Îranê tê dayîn ku, bi awayekî berbiçavtir ji berê alîkariya hevalbendên xwe ên wekî Beşar Esed, Hizbulaha Lubnanê, Husî'yên Yemenê û gurûpên din ên terorîstî bike, ji ber ku bihêzbûna wan û piştqahîm bûna wan jî bi Komara Îslamî ya Îranê jî tê wateya berdewamiya ajawe, fitne, şer, derbiderî û kavilkariya zêdetir di deverê de.

Bi wateyek din destvekirîbûna rejîmê Di warê aborî de weke encamek vê lihevhatinê, ger ji aliyekê ve nîgeraniyên rojava li dor bidestxistina çeka navikî ji aliyê rejîmê ve nahêle, lê berevaj nîgeraniyên xelkê devera Rojhilata Navîn, welatên vê deverê û hevalbendên wan ji Rojava û, ji destwerdanên Komara Îslamî xurttir dike.

ji ber ku aloziyên deverê dê xurttir û berfirehtir bibin. Bi taybetî rengê vê hindê dide ku rêketina han, hin têkiliyên nû ên siyasî û dîplomatîk jî li pey xwe bîne û, rejîma Îslamî ya Îranê jî bi mifahstandin ji van pêwendiyan, pitir û ektîvtir ji berê, xelkê Îranê û azadîxwazan tepeser bike û li deverê de jî, fitnegêrî û dubendî û destwerdanên xwe zêdetir bike û li hember de jî, bi xemsarî yan corek ji bêdengiya rojavayiyan ji eşkerekirina van siyaset û piraktîkan, xatircem be yan jî girîngiyek wusa jêre nebe.



Bi berçavgirtina vê rastiyê ku rêketinnameya Komara Îslamî û welatên 5+1 tenê pirsa navikî ya rejîmê ji xwe digre û, pirsa destwerdan û dexaleta Komara Îslamî li kar û barên welatên deverê û, binpêkirina mafên mirov û mafên neteweyan, mafên jinan û tepeserkirina berdewam û bêsînor ya azadîxwazên Îranê li navxweyî welat de, ji xwe nagire û basek ji pêşgirtina ji wan nehatiye kirin, lê bi eşkere em dibêjin ku ger rêketinnameya han heya qasekê pirsa Komara Îslamî ya Îranê û gurûpa 5+1 li ser meseleya navikî çareser kiribe, meseleya xelkê û neteweyên Îranê û azadîxwazên wî welatî û, heta mijara kêşeya welatên deverê tevî Komara Îslamî her li cihê xwe de ne û, renge li pêşerojê de jî bi berfirehî û xurtiya xwe bimînin.

Li vê derheqê de, Partiya Demokrat ya Kurdistanan Îranê bi 70 sal xebata bêrawestan û berdewam ji bo misogerkirina demokrasî û mafên netewî yên Kurdan û cihgîrkirina dadperwerî û mafên jinan li Îranê de, ku berî vê rêketinê û tenanet berî hatine ser kar ya Rejîma Îslamî ya Îranê jî, ji boy van nirx û buhayên cîhanî û mirovî xebat dimeşand, li pêşerojê de jî dê bi micidî xebatê jêre bike û li ser rêbaza xwe bimîne û riya xebatê jî heya serkevtinê û gihîştina bi wan buhayan, bi piştevanîya bi xelkê Kurdistanê bidomîne.

Rastiya han jî berbiçav e ku eger piştî vê rêketinê jî, guhertin li çalakiyên navikî yên Komara Îslamî de çê bibin, guhertin li siyaset, piraktîk û cewhera rejîmê de pêk nahê û her eva ye ku metirsiya rejîmê li ser civaka cîhanî li cihê xwe de dihêle. Lewre hewce ye welatên Rojavayî û Amerîka vê rastiyê bibînin ku nirx û buhayên mirovî yên wekî demokrasî, mafên netewan û … , li bin siya vê rêketinê de neveşêrin.

Xebata Kurdan li Kurdistana Îranê de ji bo mafên mirovî, netewî û azadîxwazane, xebatek rewa û berheq e. Xebatek e bi derbasbûyek ronî û pêşerojek geş.

Lewre xebata han heya misogerbûna demokrasî, mafên netewî û dadperweriyê bi bê tesîrkirina tu siyaset û aliyek derekî dê, wê her bidome. Xebatkarên Hizba Demokrat ya Kurdistana Îranê û keç û xortên welatparêz yên Kurd, di vê xebatê de dê rol û karîgeriya dîrokî ya xwe nîşan didin.

Em hêvî dikin ku hogirên demokrasî û azadîxwaziyê li Îranê û bi taybetî partî û saziyên Kurdistanî, bi rastîbînî û hişyarî ve ji vê mijarê binêrin û bi bê tu dudilî û gumanekê, li pêvajoya xebata li dijî rejîma dîktator ya Komara Îslamî ya Îranê de micidtir pêngavan bavêjin û li pêxem herifandina Komara Îslamî ya Îranê û bicihanîna hêwî û armancên mirovî û netewî yên gelên Îranê de, pêgir û mikûr bin.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**17.7.2015**
**26.4.1394**

## Pirtûka “70 rawestgehên dîrokî” çap û belav bû

Pirtûka “70 rawestgehên dîrokî” ji nivîsîna Birêz Têmûr Mistefayî li serûbendê 70 saliya avabûna Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê çap û belav bû.




Birêz Têymûr Mistefayî endamê Deftera Siyasî yê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê pirtûkek li jêr navê “70 Rawestgehên Dîrokî” nivîsandiye, û niha jî ew pirtûk ketiye ber destê xwendevan û hogirên vê pirtûkê.

Berhema han bas ji dîroka 70 sal xebat û tekoşîna PDKÎ dike, û ji 341 rûpel û 70 beşan pêk hatiye.

Li pirtûkê de bas ji her sê cudabûnên nav refên PDKÎ û herweha çûna vê dawiyê ya pêşmergeyan ji bo Kêleşînê jî hatiye kirin.

# Zêdebûna aloziyên siyasî di Turkiyê de piştî hilbijartinên parlemêntê û, çaresernekirina mijarên navxweyî



Îbrahîm Qasimîzad

**Gerra vê dawiyê ya hilbijartinên Turkiyê, bûye sedema vê yekê ku balansa siyasî di wî welatî de bê Guherîn.**

Dewleta Erdoxan piştî jidestdana nêzîk %10 dengên xwe yên berê, êdî nikare take siwarê qada siyasî ya Turkiyê be.

Partiya Erdoxan bona pêkanîna dewleta nû neçar e ku, bi kowalisyona tevî yek ji sê partiyên din ên serkewtî di hilbijartinê de û, yan jî hilbijartina pêşwext lidar bixe.

Bûyerên vê dawiyê yên Turkiyê û terora bajarê sînorî ya Pirsûsê ku têde 32 kuştî û 100 kes ji xwendekar û sosyalîstên seranserê Turkiyê birîndar ketin û, herweha gotinên şerranî ên partiya deshilatdar piştî şikesta di hilbijartinê de û, herweha hevkariya deshilatê tevî tundrev û terorîstên Da’îşê û, pêbendnebûna wan bi piroseya aşîtiyê tevî Kurdan û gellek mijarên din ên navxweyî, roj bi roj ji pêgeha partiya AKP kêm kir û cixza baweriya wê di nava dengderên wê de tengtir kiriye. Bi liberçavgirtina van mijaran, weha dixûye ku partiya Erdoxan tu rêyek ji bilî hikûmeta kowalisyonê nine, mijarek ku bi xwe hilgirê gelek zehmetî û astengan e.

Çavpêketin û gotubêjên bona pêkanîna dewleta kowalisyonê her dewam dike, lê gerek em bizanin ka gelo çi cure hiukûmetek kowalisyon dikare rêjeya aloziyên siyasî ên Turkiyê kêm bike?

Ji bilî du partiyên rikeber wate partiya deshilatdar û partiya Komariya gel û partiya nejadperest a Tevgera Netewî, piştî serkewtina Partiya Demokratîk a gelan(HDP) di hilbijartinên parlemêntê de, êdî altirnatîvek din bi wan bijardeyan zêde bû.

Lê hekî em li ser bername û nêrînên wan partiyan bisekinîn, derdikewe ku îmkana hevkariya di navbera wan de gellek bi zehmetî û, hindek caran jî ne mumkin tê xûyakirin.

Bo mînak kowalisyona Partiya Komarî ya Gel (CHP) û yan jî Partiya Deshilatdar (AKP), tevî partiya Tevgera Netewî (MHP) nemumkin tê xuyakirin. Jiber ku ev partiyên han di nava refên xwe de endamên curbicur ji netewên Ereb, Turk û Kurd hene û heya qasekê ji xwastekên demokratîk natirsin, lê mijara han ji boyê Tegera Netewî (MHP) nahê qebûlkirin.

Piştî danûstana tevî wan partiyan, Dewlet Baxçerî serokê MHP’ê digel pêşniyara Kemal Kilîçdaroxlu ku daxwaza posta serok wezîriyê dikirm dijatî kir û ragehand ku em dikarin rola opozisyona dayîk bigêrin.

Bi wan gotinan êdî egera pêkhatina dewletê ji aliyê wan ve nê encam ma. Hekî em hemû bijardeyan liberçav bigirin, hêj jî zehmete ku pêkanîna kowalisyonê ji aliyê MHP’ê û HDP’ê jihê gotubêjê nine, jiber ku ne mumkine.

Herweha HDP’e û CHP’e ji weke bijardeyek baş nahê dîtin, jiber ku Kemalîstên partiya Komariya Gel tu hewlekê bona hewkariya tevî partiya Demokratîk a gelan nade. Ev xemsarî û nabediliya di navbera wan de, îmkana hevkariyê tune dike.

Partiya Demokratîk ya Gelan her di despêkê de hevkariya tevî partiya deshilatê red kir, herçend piştî çend rûniştinên çend alî, rûniştinek di navbera wan de pêk hat û partiya HDP’ê çend partiyek derxistin holê û, bi wî awayî dikarî ku rêya hevkariya di navbera wan partiyan de veke, lê paretiya Deshilat AKP’ê razî bi cîbicîkirina tu yek ji wan pêşniyaran nebû.

Niha bi wê rewşê tenê kowalisyona ku egerçêbûna vê heye, kowalisyona AKP û CHP ye, pêkhateya teşkîlatî, pêgeha civakî, xwastek û pirogramên siyasî û carcar zêdexwaziyên rêberên wan partiyan û ji hemûyan girîngtir pêgeha qahîm ên herdu partiyan di nawenda biryardana welat de, wate arteşê, zemîneya hewkariya siysî û kowalisyona di navbera herdu partiyan de pêk tîne.

Ji aliyek din ve Kemal Kilîçdaroxlu



siyasetvanek nerm û miyanerew e û nermiya wî bo AKP’ê wê baş be, jiber ku sazanek weha nikare tevî Baxçelî û yanî jî Demîrtaş bike. Îber ku yek ji wan xwe xwediyê gelê Kurd dizane û ya din jî xwe dxwediyê vekheviya tewahiya gelên Turkiyê dizane.

Di dawiyê de wusa tê xûyakirin ku take egera di holê de, kowalisyona di navbera AKP’e û CHP’ê ye.

Di demekê de ku partiya AKP hejmarek ji postên wezaretî bide aliyê xwe yê beranber û, car ne car jî hindek mafan bide wan, wî çaxî dikare bi hêsanî vê partiyê hevdengê xwe bike.

Tê xûyakirin eva take rêya derbazkirina welatê Turkiyê ye ji kirîza siyasî ya han.

Lê tenanet di dema çareseriya kêşeyên di navbera partiyan de jî û, herweha pêkanîna dewleta kowalisyona di navbera wan partiyan de, hêj guherînkariyek berçav di siyaseta Turkiyê de pêk nahê. Kowalisyonek weha mumkine di pêşerojê de û bi taybet di hilbijaretinên dahatî de, rêyê ji boy partiyên din û bi taybetî HDP’ê, bona bûna bi opozisyona dayîk xweştir dike.

Hekî kowalisyona di navbera AKP û CHP negehe encamê û rê bigîje hilbijartinên pêşwext de, hêj ew çar partî wê rikeberiya hevdu bikin, jiber ku guman nahêkirin ku balansa syasî di navbera partiyan de bi awayek berçav biguhere.

Vê carê tê pêşbînîkirin ku partiya Erdoxan hejmarek zêdetir ji dengên xwe jidest bide, lê herv wê weke partiya yekem bimîne. Egera vê yekê jî heye ku partiya Tevgera Netewî her dengên xwe yên berê bidest bîne.

Partiya CHP û HDP jî wê hinek ji dengên wan zêdetir bin û bi wî awayî renge bikarin hindek pêgeha xwe qahîmtir bikin.

Lê hêj bona pêkhatina hikûmetê, partiya yekem hewcehî bi kowalisyona tevî partiyek din heye.

Lewra regne rêya herî hêsan û kêm asteng di rewşa niha ya Turkiyê de, kowalsyona di navbera du partiyên bihêz ên Turkiyê de, AKP û CHP be, kowalisyonek ku di pêngava yekemîn de gerek mijara aşîtî tevî tevgera Kurdistanê, şer tevî terorîzma Da’îşê û rêgirtin ji dabezîna aboriya Turkiyê bixe serwey rêzbenda bernameya karê xwe.

